

# BUROYA KURDÎ

## ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 140 - Kanûn 2016**
Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882
www.kurdishbureau.be kurdishbureau@scarlet. **www.facebook.com/bureaukurde**
http://en.calameo.com/accounts/3601834

# ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ

**KONFÊRANS**
**20/11/2016**

**Pieter Gerits**, mamosteyê wêjeya (edebiyat) klassîk (latînî û yûnaniya kevn) û fransî, konfêransek li ser Cihûtiyê kir:



Cihûtî hem ol e û hem jî gel e. Eger diya meriv cihû be, meriv cihû tê cihanê. Ango, cihûbûn ne girêdayî tu erkekî (wacibê dînî) olî ye. Bi ser de jî, meriv bi gelek zorî dibe cihû. Nimûne (misal) : zanîna xwendina bi ibranî (zimanê Cihuyan), meriv sunnetkirî be (zilam) …

Li cihanê nêzîkî 13 milyon Cihû hene. Nêzîkî nîvê wan li Amerîka dijîn. Li Israîlê 3.350.000, li Yekîtiya Sovyêtî ya Berê 1.800.000, li Fransa 650.000, li Brîtanya Mezzin 450.000, li Arjantînê 500.000, li Kanada 296.000, li Beljîka çend deh hezar.

Salnameya cihû, li gora Tewratê, vedigere 3.754 salan Berê Zayîna Îsa (Li gora wê, ev mêjuya "tarîx" bûna mirovê (insan) tam û têgihiştî ye).

Mêjuyên (tarîx) girîng :

- **1850** : Ibrahîm li Ken'anê bi cî bû. Kurrê wî (ji Sara), Ishaq, bû patriyarkê Israîliyan (= Yehûdiyan).
- **1300** : Cihû li Misrê dibin kole (ebîd).
- **1240 heta -1230** : Mûsa Tewratê distîne (Yasaya "qanûn" bingehî, ku ji aliyê Mûsa hatiye nivîsîn).
- **973** : Avakirina yekemîn perestgeh (ciyê ibadetê) ji aliyê Suleyman, Şahê Israîlê. Ew di 587 de ji aliyê Nabûxodonosor, şahê Babîlonya, tê têk dan (xerab kirin) û Cihû ber bi Babîlonyayê tên sirgûn (nefî) kirin.
- **537 - 515 :** Vegera Filistînê û avakirina Perestgeha 2mîn.

**70** : Têkdana perestgeha 2mîn ji aliyê Romayiyan.

**70-1948** : dema DYASPORAYA MEZZIN (jiyana li derveyî welat).

**312** : Imperator Konstantîn ola xwe diguherîne û dibe filleyê katolîk : Hêdî hêdî Cihûtî li nav Imperatoriyê nema tê qebûl kirin.

**1492** : (dîtina "iktişaf" cihana nuh !) : Li Ispanya Cihû tên qir kirin û qewirandin.

**1555** : Papa Paul IV Cihuyan neçar (mecbûr) dike ku di nav "Ghetto"yan (taxên girtî yê Cihuyan) de bijîn.

**Di çaxên navîn de**, qedexe bû ku Cihû çandinê (ziraet) bikin : Ew bûn bazargan û xwediyên bankan.

**1933-1945** : SHOAOH (holocauste) : 6 milyon Cihû ji aliyê rejîma nazî ya Hitler, li Almanya, tên kuştin.

**1948** : Di 15 Gulan de, avabûna Dewleta Israîlê.

**"Patriyarkên" sereke** : Nûh, Ibrahîm, Ya'qûb.

**Pêxemberên sereke** : Samuêl, Êlî, Êlîzê, Ishaq, Êzêşyêl, Jêrêmî û Danyêl.

**Telmûd** : Tê de hemî şirovekirinên Tewratê hene.

**Wesiyeta Kevn** (Ancien Testament), li gora ola fille, tê de 3 celeb nivîs hene : Tewrat, Pêxemberên Cihê û Nivîsên Rîsipiyan (merivên aqil).

**Ji 600 wasiyye bêtir** (ferman û qedexekirin). Weka nimûne, qedexekirina xwarina goştê beraz …, di roja "sebat"ê (Şemî) de, ku rojeke hêsabûna tam e …

**Navên mezzin** : Albert Einstein, Sigmund Freud, Karl Marx, Spinoza, Mendelssohn-Bartholdy, Yehudi Menuhin (kemanjen), Leon Trotski, Steven Spielgerg, Franz Kafka û Îsa (Yesuah Ben Yûsif).

## HEVKARÎ BI RÊXISTINÊN DIN RE

**24.11.2016 : Gihandina wergêran**
Rêxistina Bruxelles-Accueil (Brussel-Onthaal) rojeke gihandina (perwerdekirin) werêgêrên (tercuman) ku ew bi wan re kar dike pêk anî. Ev wergêrên ji netewahiyên cihê bi awakî rêkûpêk (muntazam) ji bo penaberan werdigerînin. Li Buroya Kurdî, Zaralî Nikraweş, wergêrekî sondxwarî yê ji Kurdistana Îranê, ji zû de ji bo Kurd, Îranî û Afxaniyan werdigerîne.

## BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN

**13.11.2016 : Konsêreke Pyano**
**Navenda Çandî De Markten** konsêreke pyano, ya muzîkvan û stranbêjê navdar Raymond Van Het Groenewoud, pêk anî.

***17.11.2016 : Kongreya De Markten***
Navenda çandî De Markten kongreya xwe kir. Berpirsiyaran encamên çalakî û maliya rêxistinê pêşkêş kirin. Piştre rêsêpsyonek hat dayîn û fîlmeke belgeyî, De Kerk in het Midden (Dêr li Ortê), ya Marie Geukens, hat nîşan dan.

***18.11.2016 : Konsêreke Alîkariya Sûriyê***
Rêxistina Strijdkoor Kontrarie konsêreke piştgiriyê ji bo rêxistina xêxwaz ku li Sûriyê kar dike, **"De Witte Helmen in Syrië"** (Kaskên Sipî li Sûriyê), li navenda çandî De Wildeman, li bajarê Hêrent, pêk anî.
De destpêkê de, keçeke cuhan a sûrî ya fille, ku ji 5 salan de bi malbata xwe re li Beljîka dijî, çîroka xwe got. Piştre, koma muzîk û stranên kurdî, Nûjîn, bi rêvebiriya Ekrem Xamo, stranên kurdî û yeke erebî pêşkêş kirin. Û piştre jî korala (chorale) Strijdkoor Kontrarie, ku ji 50 stranbêjan pêk tê, bi zimanên ispanî, hollandî, ingilîzî û fransî stira. Li dawiyê, bi hogiriya koma Nûjîn, hemî bi hev re straneke erebî stira. Babetên (thèmes) van stranên gelek xweş derd, bêhêvîtî û li dawiyê hêviya bi pêşerojê bûn.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

## KURDISTANA TIRKIYÊ

### DÛMAHÎKA ŞERRÊ DI NAVBERA TIRKIYE, PKK Û DAIŞê DE

***Amed (Diyarbekir)***
***Di 04 Teşrîn 2016 de***, di demjimêr 8 a serê sibê de, erebeyeke bombekirî li ber Birêvebiriya Hêzên li dijî Têrrorîsmê teqiya. 10 kes, ku ji wan 2 polîs, hatin kuştin û 100 jî birîndar bûn.
Parêzgarê Amedê PKK bi vê yekê tawanbar kir, lê Dewleta Islamî, û piştre şervanên kurd ên TAKê (Teyrên Baz ên Kurdistanê), xwedî li vê êrîşê derketin.
Parlementerê Izmirê, yê partiya kurdî HDP (Partiya Dêmokratîk a Gelan), Ertuğrul Kürkçü, TAK tawanbar kir. Partiyên kurdî yên din jî ev êrîş tawanbar kir.
***Di 23 Teşrîn de***, tevgereke leşkerê tirkî li bajarokê Licê, yê girêdayî Amedê, dest pê kir.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 04.05,06,07,27.11.2016)*

***Şirnex (Şırnak)***
***Di 05 Teşrîn de***, bombeyek teqiya. 2 zarok hatin kuştin û 4 birîndar kirin. Parêzgarê Şirnexê daxuyand ku zarokan ev bombe dîti bû û pê lîzt.
Fermandarê leşkerê tirkî, gênêral Hulusi Akar, tevî berpirsiyarên din ên leşkerî, çû Şirnexê ji bo ku tê de vekolînekê û çavdêriya yekîneyên leşkerî bike.

***Di 14 Teşrîn de***, 8 meh piştî qedexekirina hatûçûnê li navenda Şirnexê, parêzgar biryar stend ku wê ji demjimêr 5 heta 22 rake. Rûniştevanan dest pê kir ku vegerin malên xwe.

Ji sedema şerrê di navbera PKK û hêzên ewlehiyê yên tirkî de, gelek xanî, dibistan, mizgeft û kargeh têk çûne (xerab bûne).

***Di 24 Teşrîn de***, bombeyek li ser serbaz û mîlîsan teqiya. Serbazek hat kuştin û 2 jî, tevî 3 mîlîsan, birîndar bûn. Tevgereke leşkerî ya mezzin dest pê kir.
*(rudaw.net, 05,10,14,24.11.2016)*

***Xozat û Pilûr, li nêzîkî Dersîmê***
***Di 07 Teşrîn de***, firokeyên tirkî gundê Parika, girêdayî Xozatê, bombe kir. 5 kesên çekdar hatin kuştin. Hatûçûn di navbera Xozat û Dersîmê de hat qedexe kirin û hêlîkoptêr bê rawestan firriyan. Nayê zanîn ku ev zila-

mên çekar girêdayî kîjan rêxistinê ne. *(rudaw.net, 08.11.2016)*

### *Qedexekirina hatûçûnê li Dersîmê*
***Ji êrîşa 07 Teşrîn de***, tevgerên leşkerî ajot û 14 PKK hatin kuştin. Parêzgarê Dersîmê qedexekirina hatûçûnê li 22 gundan daxuyand.
*(rudaw.net, 10.11.2016)*

***Di 23 Teşrîn de***, leşkerê tirkî dest bi tevgerekê li Pilûr û Xozatê, yên girêdayî Dersîmê, kir. 5 PKK hatin kuştin.
*(rudaw.net, 27.11.2016)*

### *Çewlik (Bingöl)*
Pevçûn li bajarokê Darahênê, di navbera hêzên ewlehiyê yên tirkî û şervanên PKKê de, bûn. Mîlîsek (Kurdên ku hevkariya leşkerê tirkî dikin) hat kuştin. Tevgerên leşkerî li navçeyê dajon (dewam dikin).
*(rudaw.net, 08.11.2016)*

### *Dêrik, girêdayî Mêrdînê*
***Di 10 Teşrîn de***, bombeyek li ber şaredariya Dêrikê taqiya. 4 kes, ku ji wan dergevan û muxtar, birîndar bûn. Tevgereke leşkerî ya fireh dest pê kir. PKK xwedî li vê êrîşê derket.
*(rudaw.net, 10 û 11.11.2016)*

### *Wan (Van)*
***Di 14 Teşrîn de***, bi şev, bombeyek li ser buroya partiya tirkî ya desthilatê, AKP, teqiya. Tu qurban ne bûn.
*(rudaw.net, 05.11.2016)*

### *Riha (Urfa)*
***Di 30 Teşrîn de***, kesên nenas ên çekdar êrîşî erebeyeke polîs kir. 3 polîs birîndar bûn. Tevgereke polîs dest pê kir.
*(rudaw.net, 30.11.2016)*

## ÊRÎŞ LI TIRKIYÊ

### *Ankara*
***Di 08 Teşrîn de***, çekdarên nenas êrîşî navenda polîsê taxa Altındağ kir. Derî û pace hatin têk dan. Polîs dest bi vekolînan kir.
*(rudaw.net, 08.11.2016)*

### *Istanbul*
Li bajarokê Maltepe bombeyeke ku di nav nameyeke ku ji şirketa êlêktronîke re hati bû şandin de bû teqiya. 3 kes birîndar bûn. Ev şirket a birayê serokwezîrê tirk Mesut Yılmaz, Turgut Yılmaz, e.
*(rudaw.net, 14.11.2016)*

### *Antalya*
Serbazên ku lêgerîn li daristaneke bajarokê Konyaaltı dikir hatin êrîş kirin. Yek ji wan birîndar bû. Leşker û hêlîkoptêr tê de belav bûn.
*(rudaw.net, 14.11.2016)*

### *Adana*
***Di 24 Teşrîn de***, teqînek li parkînga parêzgariya Adana bû. 2 sîvîl hatin kuştin û 16 birîndar bûn. Qedexekirina demkî (muweqqet) a hatûçûnê hat daxuyandin.
*(rudaw.net, 24.11.2016)*

## DEWLETA TIRKÎ LI DÛ ENDAMÊN PARTIYA KURDÎ "DHP" DIÇE

### *Parlementerekî Şirnexê tê ragirtin*
***Di 03 Teşrîn 2016 de***, dema ku Ferhat Encu, parlementerê Partiya Dêmokratîk a Gelan "HDP" yê navçeya Şirnexê, dixwest ku li firokeyê siwar bibe, ji bo ku biçe Bruksêlê, polîs pasaporta wî li firokexaneya Isanbulê stend.

***9 parlementer tên ragirtin***




***Di 04 Teşrîn de***, di nîvê şevê de, 13 parlementerên ji heman partiya kurdî HDP, ku ji wan her du cîgirên serok, Selahettin Demirtaş û banû Figen Yüksekdağ, hatin ragirtin. Piştre, 3 ji wan hatin azad kirin. Ev yek, li ser bingeha daxwaziya dozkarên Amed, Şirnex, Colemêrg (Hakkari), Wan û Çewlikê (Bingöl).
*(rudaw.net, avestakurd.net, 04.11.2016)*

### *Xwestina zîndankirina Feleknas Uca*
5mîn dadgeha cezayên giran a Amedê tawanbarkirina parlementera Amedê, ya partiya HDP, Feleknas Uca, bi zîndankirina di navbera 7 sal û nîv û 15 salan de, xwest. Ew bi "endambûna rêxistineke têrrorîst a çekdar" hatiye tawanbar kirin. Sedema vê yekê ew e ku di 24 Gulan 2016 de, Uca li parka Koşuyolu, li Amedê, axaftinek biri bû û tê de pesna şervanên jin ên Kurdistana Sûriyê, "YPJ", û yên mêr, "YPG", da bû û goti bû ku ew "sembolên azadiyan" in.
*(rudaw.net, 09.11.2016)*

*2 hev-şaredar li Gimgimê (Mûş) tên ragirtin*

Di çarçeveya vekolîneke dozkarê Gimgimê, ya girêdayî Mûşê, de, hev-şaredarên Gimgimê, ku ji wan yek jin e, Sabite Ekinci, hatin ragirtin, ji bo ku bên birin dadgehê. Piştre, Ekinci hat xistin zîndana Mûşê û jêpirsîn bi hevkarê wê, Güneş, re dajo (dewam dike). Ew bi kirina ka-

rên ne li gora şaredariya xwe hatine tawanbar kirin. *(rudaw.net, 09.11.2016)*

### *Hev-şaredarên Mêrdîn û Sêrtê tên derxistin*

***Di 15 Teşrîn de***, hev-şaredarê Mêrdînê, Ahmet Türk, û yê Sêrtê (Siirt), Tüncer Bakırhan, ji kar hatin avêtin. 6 doz (da'wa) li dijî Ahmet Türk hati bûn vekirin.

***Di 21 Teşrîn de***, Ahmet Türk û şaredarê Artuklu, li Mêrdînê, Emin Irmak, hatin bin çav kirin û li malên wan lêgerîn hatin kirin.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 16,21.11.2016)*

***3 hev-şaredarên Sêrtê tên ragirtin***

***Di 16 Teşrîn de***, di demjimêr 6.30 a serê sibê de, di çarçeveya vekolîneke dozkarê Sêrtê de, polîsê tirkî hev-şaredarê Sêrtê, Tüncer Bakırhan, û hev-şaredarên Dersîmê, Mehmet Ali Bul û banû Nurhayat Altun, ragirtin. Piştî lêgerîna li malên wan, kompyûterên wan hatin stendin.
*(rudaw.net, 16.11.2016)*

***15 sal zîndan ji hev-şaredarê Wanê re***

***Di 16 Teşrîn de***, di çarçeveya vekolîna ku ji aliyê dozkarê komarê yê Wanê hat kirin de, polîs lêgerîn li şaredariya Wanê kirin û şaredarê wê, Bekir Kaya, ji partiya kurdî DBP (Partiya Navçeyên Dêmokratîk) ragirt. Piştre, ew ji kar hat derxistin. Ji berê jî, di çarçeveya doza KCKê (Kongreya Civaka Kurdistanê) de, Kaya hati bû dadgeh kirin û bi 15 sal zîndan tawanbar kirin.

***Di 18 Tebax de***, ew hat birin dadgehê û bi 15 sal zîndan, bi "endambûna rêxistineke terrorist", hat tawanbar kirin.
*(avestakurd.net, 16.11; rudaw.net, 16 û 18.11.2016)*

### *Hev-serokê HDP tê azad kirin*

***Di 17 Teşrîn de***, hev-serokê partiya kurdî DBP, Kamuran Yüksek, li Idilê, bajarokekî Şirnexê, hat azad kirin. Ew di heman rojê de hati bû ragirtin û pirs jê hati bûn pirsîn.
*(rudaw.net, 17.11.2016)*

***2 parlementerên HDP diçin dadgehê***

***Di 17 Teşrîn de***, piştî ku Dadgeha Amedê ne xwest ku guhdariya Selahettin Demirtaş û Figen Yüksekdağ bike, ew çûn bal Dadgeha Destûrî.
*(rudaw.net, 18.11.2016)*

### *Hev-şaredarê Milazgirê (Mûş) tê ragirtin*

Polîs hev-şaredarê bajarokê Milazgirê, yê girêdayî Mûşê, Halıs Coşkun, û 3 karmendên wî ragirtin. Vekolînek li ser wan hatiye dest pê kirin.
*(rudaw.net, 18.11.2016)*

***Hev-şaredarên Dersîmê tên ragirtin***

***Di 17 Teşrîn de***, hev-şaredarên Dersîmê, Mehmet Ali Bul û Nurhayat Altun, hatin ragirtin û alîkarê parêzgarê Dersîmê, Olgun Öner, ciyê wan stend.
*(rudaw.net, 22.11.2016)*

***13 kes li Dersîmê tên ragirtin***

Di çarçeveya rewşa awarte de, 13 karmendên şaredariya Dersîmê, ku ji wan alîkarê hev-şaredaran, Ibrahim Kasun, ji kar hatin avêtin.
*(rudaw.net, 22.11.2016)*

### *Hev-şaredarê Bedlîsê tê ragirtin*

***Di 24 Teşrîn de***, polîsê tirkî lêgerîn li hemberî şaredariya Bedlîsê (Bitlis) kirin û hev-şaredar, Huseyin Olan, ragirt.
*(rudaw.net, 24.11.2016)*

### *Şaredarê Qoserê tê ragirtin*

***Di 25 Teşrîn de***, şaredarê bajarokê Qoserê, yê girêdayî Mêrdînê, Islail Asi, tevî 4 kesên din hat ragirtin.
*(rudaw.net, 25.11.2016)*

### *Berteka (rêaksyon) partiya kurdî HDP*

Partiya kurdî HDPê konfêranseke çapemeniyê pêk anî. Parlementerê Rihayê (Urfa) tê de got ku eger wî perçe perçe bikin jî, ewê, weka şervanên ji bo azadiyê, tucar dev ji doza xwe bernedin.

Berdevkê HDP li Amedê, Ayhan Bilgen, daxuyand ku parlementerên vê partiyê li parlementa tirkî biryar stend ku çalakiyên xwe rawestînin. Serokwezîrê tirk, Binali Yıldırım, bangî wan kir ku vegerin parlementê.
*(rudaw.net, 04 û 06.11.2016)*

### *Berteka partiya tirkî CHP*

Partiya dijberiyê ya tirkî CHPê ragirtina van parlementerên kurd û jêpirsînên li ser rojnameya xwe « Cumhuriyyet »ê şermezar kirin.
*(rudaw.net, 07.11.2016)*

### *Berteka Amerîka*

Balyozê Amerîka li Ankara nerazîbûna xwe ya kûr ji van ragirtinan daxuyand.
*(rudaw.net, 04.11.2016)*

### *Berteka Kurdistana Iraqê*

Di daxuyaniyeke nivîskî de, hukûmeta Kurdistana Iraqê endîşeya xwe nîşan da û got ku ewê ev yek rewşê xerabtir bike.

Komên Partî Dêmokratî Kurdistan (PDK) û Tevgera Goranê, li parlementa Kurdistana Iraqê, jî daxuyaniyeke weha kir. Bi ser de jî, xwepêşandanek li parka Şanederê, li Hewlêrê, bû.
*(nefel.com, rudaw.net, 04.11.2016)*

### *Berteka Kurdên Îranê*

Du parlementerên kurd li parlementa îranî, Seyid Ehesen Elewî û Qasim Osmanî, ev ragirtin şermezar kirin û got ku ew hêvî dikin ku hukûmeta tirkî gelê kurd û mafên mirov nepelixîne.

Gelheya Kurdistana Îranê jî di mêdyayên civakî de ev kirin şermezar kirin.
*(rudaw.net, 05.11.2016)*

### *Berketa Kurdan li Londonê*

***Di 04 Teşrîn de***, Kurdan li Londonê, li hemberî buroya serokwezîrê brîtanî, xwe pêşan da. Piştre, ew çûn ber balyozxaneya (sefaretxane) Tirkiyê û tecrube kir ku bikevin hundirê wê. Di pevçûnên bi polîs re de, polîsek bi sivikî birîndar bû.
*(rudaw.net, 05.11.2016)*

### *Berteka Iraqê*

Rawêjkarê (muşawir) serokê Iraqê, Ebdul-Latîf Cemal Reşîd, ev ragirtin şermezar kirin û ew bi antî-dêmokratîk bi nav kirin. Û wî ji Tirkiyê xwest ku leşkerê xwe ji Kurdistana Iraqê û Mûsilê bikişîne û xwe nexe nav karên Iraqê.
*(rudaw.net, 08.11.2016)*

### *Girtiyeke cuhan xwe dişewitîne*



Keçeke cuhan a kurd, **Zehra Epli**, 24 salî, girtiyeke siyasî li zîndana Gebze, xwe şewitand, ji bo ku li dijî ragirtinên parlementerên kurd derkeve. Ew li Tartusê, li nêzîkî Mersinê, li Tirkiyê hat gor kirin.
*(rudaw.net, 08.11.2016)*

### *Berteka PYD*

Salih Muslim, hev-serokê partiya kurdî ya Sûriyê, PYD, ku nêzîkî PKKê ye, ev ragirtin şermezar kirin.
*(avestakurd.net, 07.11.2016)*

### ROJNAMEVANEK TÊ RAGIRTIN

Hatice Kamer nûçegihaneke BBC ye. Dema ku ew çû Sêrtê (Siirt), ji bo ku tê de rewşa karkerên ku bûn qurbanên qezayekê bişopîne, hat bin çav kirin û piştre birin birêvebiriya ewlehiyê (emniyyet).
*(rudaw.net, 27.11.2016)*

### SEMPOZYUMEKE NAVNETEWEYÎ LI AMEDê

***Di 03 Teşrîn de***, Sempozyuma Navneteweyî li ser Bajarê Amedê, li Kurdistanê, bû. 400 akadêmîk beşdarî wê bûn. 281 konfêrans li ser dîrok, wêje (edebiyat), endazî (hendese), erdnigarî (coxrafya) û abora (iqtisad) Amedê hatin pêşkêş kirin.

Wezîrê berê yê çandinê, Mehdi Eker, ku nuha alîkarê serokê partiya tirkî ya desthilatê, AKP, ye, PKK gelek rexne kir û got ku ew dixwaze ku dîwarê kevnar ê Amedê « Sur » têk bide (xerab bike) û bi vî awayî zarar bigihîne rûniştevanên bajar.
*(rudaw.net, 03.11.2016)*

### WEZÎREKÎ TIRK : PARTIYÊN ALTÊRNATÎF ÊN KURDÎ PÊWÎST IN

Wezîrê tirk ê çandinê ji rojnameya tirkî Hürriyetê re daxuyand ku gelê kurd aliyên wî yên siyasî yên cihê hene û ku divê ku çend partiyên ku ji HDPê re altêrnatîf bin bên ava kirin. Û wî got jî ku tukes naxwaze ku şaredar bên ragirtin.
*(rudaw.net, 18.11.2016)*

### TIRKIYE RAGIRTINA 103 MAMOSTEYÊN ZANÎNGEHAN DIXWAZE

Dozkarê giştî yê Istanbulê fermana ragirtina 103 mamosteyên zanîngehan da. Ew bi endambûna tevgera Fethullan Gülen hatine tawanbar kirin. Gülen rikberê (reqîb) serokwezîrê tirk Erdoğan e û li Amerîka dijî. Ew bi tecrubeya darbeyeke leşkerî hatiye tawanbar kirin (li bultenên me yen berê binêre).

***Di 17 Teşrîn de***, polîs 70 mamoste ragirtin û hîn jî li yên din digerre.
*(rudaw.net, 18.11.2016)*

### TIRKIYE 1.547 TIRKÊN UKRANYê LI KURDISTANÊ BI CÎ DIKE

Hukûmeta tirkî nuh 341 Tirkên navçeya ukranî ya Akhinska li bajarokê Cîmînê, yê girêdayî Erzincanê, li Kurdistana Tirkiyê, bi cî kirin. Ji berê jî, wê tê de 1.206 Tirkên vê heman navçeya Ukranya bi cî kiri bûn.

Akhiska navçeyeke Gurcistanê ye û li sînorê bajarên Erdexan û Arvî, li Kurdistana Tirkiyê, ye. Di 1944 de, Tirkên Akhiska ji aliyê Stalîn hatin bûn sirgûn kirin û li welatên cihê yên Yekîtiya Sovyêtî belav kirin.
*(rudaw.net, 18.11.2016)*

### TIRKÊN NATOYê PENABERIYA SIYASÎ DIXWAZIN

Sekreterê giştî yê NATOyê, Jens Stolnberg, di konfêranseke çapemeniyê de, ku berê civîna li Bruksêlê ya wezîrên parastinê yên welatên NATOyê bû, daxuyand ku hin efser (zabit) û serbazên (esker) leşkerê tirkî, ku li hin bingehên NATOyê kar dikin, mafê penaberiyê li welatên rojavayî xwest.
*(rudaw.net, 18.11.2016)*

**BÊKARÎ LI TIRKIYÊ BILIND DIBE**
Navenda Agahdariya Serjimêriyên (statîstîk) Fermî li Tirkiyê daxuyand ku rêjeya (nisbet) bêkariyê li Tirkiyê her roj bilind dibe û ku di navbera Tebax 2015 û Tebax 2016 de, 579.000 kes bêkar bûn. Ev jimar ji aliyê sendîkayan tê rexne kirin û ew dibêjin ku jimara rast du carê wê ne.
*(rudaw.net, 19.11.2016)*

**10.574 KARMEND TÊN DÛR XISTIN**

Di çarçeveya rewşa awarte de, 7.586 karmendên ewlehiyê û 1.988 ên leşkerê tirkî hatin ragirtin. Ew bi alîgirbûna Fethullah Gülen, oldarê ku rikberê serokwezîrê tirk e û ku li Amerîka dijî, hatine tawanbar kirin.
*(rudaw.net, 22.11.2016)*

**PARLEMENTA EWROPÎ GIFTÛGOYÊN XWE BI TIRKIYÊ RE HILDIWESTÎNE**
***Di 24 Teşrîn 2016 de***, bi piraniya dengan, Parlementa Ewropî biryar stend ku giftûgoyên xwe bi Tirkiyê re, li ser xwestina wê ku bibe endama Yekîtiya Ewropî, hilawestîne (daleqîne) : 479 deng belê, 107 na û 37 li dijî.

Ewê serokên dewlet û hukûmetên ewropî li ser paşeroja pêwendiyên Yekîtiya Ewropî bi Tirkiyê re li Lutkeya (civîna bilind) Ewropî, ku ewê li Bruksêlê di 15 û 16 Kanûn 2016 de bibe, giftûgo bikin.
*(rudaw.net, Middle East Diplomatic, 24.11.2016)*

OTRÎŞ NEMA ÇEKKAN JI TIRKIYÊ RE DIFIROŞE
Parlementa Otrîşê (Nêmsa) deng da pêşniyareke ku ji hukûmeta xwe bixwaze ku nema çekkan ji Tirkiyê re bifiroşe. Li gora parlementereke kurd a vê parlementê, Bêrîvan Aslan, her 6 partiyên ramyariyî (siyasî) deng da vê ambargoyê. Ev welatê pêşîn e ku biryareke weha destîne.
*(rudaw.net, 24.11.2016)*

# KURDISTANA IRAQÊ

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ**

***ENIYA MÛSILÊ***

***Şerr li dora Mûsilê***
Şerrên dijwar li dora bajarê Mûsilê, paytexa Dewleta Islamî li Iraqê, di navbera leşkerê iraqî û DAIŞê de, û bi piştgiriya firokeyên hêzên hevpeyman ên navneteweyî, bûn. Di 16 rojan de, 2.000 şervanên Dewleta Islamî hatin kuştin.

***Di 01 Teşrîn 2016 de***, li bajarokê Mexmûrê, civîneke fermandariya tevgerên hevbeş, ku ji Pêşmerge, leşkerê iraqî û hêzên ezmanî yên hevbendiya navneteweyî pêk tê, bû. Piştre, berdevkê wezareta iraqî ya hundir, Sadî Meûn, konfêranseke çapemeniyê kir û tê de got ku heta nuha hemî ev hêzên jorîn, tevî hêzên antî-têrrorê, polîsê federal, êlên (eşîr) “Heşî Eşairî” û mîlîsên şîî yên “Heşdî Şe’bî” bi hemahengî (coordination) şerr dikin.

Berdevkê hevbendiya navneteweyî ya ezmanî, John Dorian, got ku heta nuha 3.000 bombe li ser bingehên Dewleta Islamî hatine avêtin.

***Di 05 Teşrîn de***, leşkerê iraqî bajarokê Hemam Elîl, bi alîkariya hêzên hevbend ên ezmanî, rizgar kir. Dewleta Islamî beşeke mezzin ji rûniştevanên wî weka mertalên mirovî bi kar anî. Ev bajarok 20 km li Başûrê Mûsilê ye.

Çend gundên li dora Mûsilê jî hatin rizgar kirin. Rûniştevanên gundê Til El-Zehebe li bin parastina leşkerê iraqî vegeriyan malên xwe.
*(rudaw.net, 01,05,21,23.11.2016)*

***Leşkerê iraqî dikeve nav Mûsilê***
***Di 01 Teşrîn de***, leşkerê iraqî ket nav taxa Gogcelî. Piştî şerrên giran, vî leşkerî çavdêriya (kontrtol) wê kir (li hev hati bû kirin ku hêzên kurdî yên Pêşmerge nekevin nav Mûsilê. Buroya Kurdî). Rûniştevan bi girseyî (kitle) jê reviyan û çûn ber bi Kurdistana Iraqê. Piştre leşkerê iraqî taxên din jî hêdî hêdî rizgar kirin.
*(rudaw.net, 01,04,07,20.11.2016)*

***Dewleta Islamî 63 ji şervanên xwe dikuje***
Ji bo tirsandina şervanên xwe, ji sedema ketina leşkerê iraqî nav Mûsilê, Dewleta Islamî 63 ji wan kuştin ! Û berê rojekê, wê 600 kesên ku sîvîl û karmendên berê yên ewlehiya iraqî bûn ragirtin. Beşek ji van kesên ragirtî pejirand (qebûl kir) ku li tenişta Dewleta Islamî şer bike, ji bo ku ji mirinê kutah (xelas) bibe.
*(rudaw.net, 01.11.2016)*

***DAIŞ ji zarokan dixwaze ku xwe biteqînin!***
Zarokên ku tevî malbatên xwe ji Mûsilê reviyan û ku nuha li kampa Xazirê, li Kurdistana Iraqê, ne, dibêjin ku wan nikari bû li kuçan bilîzin û ku şervanên Dewleta Islamî bombe didan wan û ji wan dixwest ku xwe biteqînin!
*(rudaw.net, 04.11.2016)*

***Serokekî mezzin ê Dewleta Islamî direve***
***Di 24 Teşrîn de***, Serokê Dadgeha Olî (şerî’e), Nizam Rufahî, ku hevalekî nêzîk ê Ebû Bekir El-Bexdadî, serokê Dewleta Islamî, ye, ji Mûsilê reviya. Berpirsiyarê Mûsilê yê Partî Dêmokratî Kurdistan, Seîd Memûzînî, ev nûçe

daxuyand û got ku nuha li hundirê Mûsilê nema tu berpirsiyarekî Dewleta Islamî heye.

Serokê wî, Ebû Bekir El-Bexdadî, ji berê ji şervanên xwe re goti bû ku eger ew nikaribin xwe biparêzin, divê ku birevin.

Heta nuha, 2.300 şervanên Dewleta Islamî, ku ji wan hin berpirsiyar, hatine kuştin.
*(rudaw.net, 25.11.2016)*

### *U.N. : 1.600 sîvîl bûne mertalên mirovî*
Berdevkê U.N.ê, Steven Dugarec, got ku li bajarokên Til Efer û Hemam Elî, Dewleta Islamî 1.600 sîvîl weka mertalên mirovî bi kar anîn û ew birin Sûriyê. U.N.ê gazin jî kir ku DAIŞ li Mûsilê, weka li Şingalê, nijadkujiyek dike.
*(rudaw.net, 07.11.2016)*

### *Amerîka : 3.000 - 4.000 DAIŞ li Mûsilê*
Berdevkê hevpeymaniya navneteweyî li Iraqê, John Dorrian, daxuyand ku Amerîka ji biserketinên Pêşmerge gelek dilxweş e. Û wî got jî ku jimara şervanên Dewleta Islamî li bajarê Mûsilê digihêje 3.000 yan 4.000.
*(rudaw.net, 07.11.2016)*

### *UNICEF li Mûsilê*
Ji bo cara yekemîn ji du salan de, UNICEFê kari bû bikeve nav Mûsilê, bi hemahengiya (coordination) rêxistinên din ên navneteweyî, weka WFP û UNFPA. Wê xwarin, derman, amûrên paqijkirinê … anîn û daxuyand ku heta nuha 57.000 kes, ku ji wan 27.000 zarok, ji Mûsilê reviyane. Ew bawer dike ku hîn jî tê de 600.000 zarok hene.
*(rudaw.net, 20.11.2016)*

### *Goreke hevrayî li Hemam Elîl*
***Di 05 Teşrîn de***, leşkerê iraqî bajarokê Hemam Elîl rizgar kir. Wî tê de goreke hevrayî, ku tê de nêzîkî 400 laşên ku piraniya wan serên wan hatine jêkirin, dît.
*(rudaw.net, 10.11.2016)*

### *2 gorên hevrayî li Şergatê*
Muxtarê bajarokê Şergatê daxuyand ku hêzên ewlehiya iraqî 2 gorên hevrayî, ku tê de 40 laş hene, li navenda vî bajarokî dîtin.
*(rudaw.net, 08.11.2016)*

### *Başîk : 11 DAIŞ tên kuştin*
Pêşmerge li Başîkê 11 şervanên Dewleta Islamî kuştin. Bi ser de jî, wan 2 ji wan, ku dixwest ku xwe biteqînin, ragirtin. Pêşmergeyên Kurdistana Îranê, yên Partiya Azadiya Kurdistan, jî li eniya Başîkê şerr dikin.
*(rudaw.net, 07.11.2016)*

## BAŞÎK TÊ RIZGAR KIRIN
***Di 07 Teşrîn de***, Başîk ji aliyê Pêşmerge û Pêşmergeyên Roj (ên Kurdistana Sûriyê) hat rizgar kirin. 16 şervanên Dewleta Islamî tecrube kir ku birevin, lê ew ji aliyê Pêşmerge hatin kuştin.
*(rudaw.net, 07,10.11.2016)*

## BERZANÎ SEREDANA BAŞÎKÊ DIKE



***Di 09 Teşrîn de***, serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, çû seredana eniya Başîkê û tê de bi fermandarên Pêşmerge re civiya. Piştre, wî got ku metirsiya (tehlike) Dewleta Islamî li ser Kurdistanê derbas bûye û ku ewê Pêşmerge nekevin Mûsilê (li gora lihevkirineke bi hukûmeta Bexdadê re, bitenê leşkerê iraqî mafê wî heye ku bikeve nav wê. Lê mafê Pêşmerge heye ku gund û bajarokên ku li dora Mûsilê ne rizgar bikin. (Li bultena me ya buhurî binêre).
Di daxuyaniyeke nivîskî de, Berzanî got ku ewê ev navçe ji mînan bê paqij kirin û rûniştevanên wê vegerin.
*(rudaw.net, 7,8,9.11.2016)*

***Di 16 Teşrîn de***, Berzanî li Başîkê axaftineke dîrokî, li ber nimînendeyên ol û êtniyên cihê, kir. Wî tê de got ku tabloya rengîn a pêkhatên cihê yên olî û êtnîkî, ku li Başîkê ne, piralîbûna (pluralisme) li Kurdistanê nîşan dide.
*(nefel.com, 11.11.2016)*

## KURDÊN YEZÎDÎ VEDIGERIN BAŞÎKÊ
Bi merasîmeke olî, Kurdên yezîdî vegeriyan. Li Başîkê 140.000 kes dijîn. Ji wan 70% Kurdên yezîdî, 20% Fille û 10% misilmanên sunnî û şîî ne.
*(Rudaw.net, 11.11.2016)*

### *6.413 ZAROKÊN YEZÎDÎ JI ALIYÊ DAIŞê HATINE REVANDIN*

Berpirsiyarê Karên Yezîdiyan li Wezareta Ewqafên Olî ya Kurdistanê, Xeyrî Bozanî, ji ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê re daxuyand ku Dewleta Islamî 6.413 zarokên yezîdî revandine û ku 2.754 ji wan hatine rizgar kirin. Û wî got jî ku bi ser de jî, 998 jin û 327 zilam hatin rizgar kirin, lê ku hîn 220 dê û bav di destên Dewleta Islamî de ne.
*(rudaw.net, 16.11.2016)*

**18 JINÊN YEZÎDÎ TÊN RIZGAR KIRIN**

***Di 23 Teşrîn 2016 de***, bi şev, piştî dîlbûna (esîrbûn) 30 mehan, 18 jinên kurd ên yezîdî ji Dewleta Islamî hatin rizgar kirin û birin Duhokê.

Berpirsiyarê Buroya Rizgarkirina Jinên Yezîdî, Huseyn Kuru, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku heta nuha, 2.800 Yezîdî ji Dewleta Islamî hatine rizgar kirin.
*(rudaw.net, 24.11.2016)*

***Kurdistan pêşwaziya penaberan dike***
Heta nuha, 1.000 penaber li navenda Xazirê hene. Ji wan re xwarin ji aliyê Rêxistina Xêrxwaz a Berzanî tê dayîn.
*(rudaw.net, 06.11.2016)*

***2.300 DAIŞ hatine kuştin***

Li gora serjimartinên leşkerî, ji destpêka tevgera Mûsilê de, ji 2.300 çekdarên Dewleta Islamî bêtir hatine kuştin.
*(rudaw.net, 15.11.2016)*

***Konsulê Fransa seredana kampeke penaberan dike***
***Di 09 Teşrîn de***, konsulê Fransa li Kurdistanê, Dominique Mas, çû seredana kampa penaberan a Dibegê. Wî got ku ewê rêxistinên fransî yên civaka sîvîl alîkariya penaberan bikin û piştgiriya hukûmeta xwe ji Iraq û gelê kurd re daxuyand.
*(rudaw.net, 09.11.2016)*

***Berzanî : Şikandina DAIŞê têr nake***
***Di 06 Teşrîn de***, rawêjkarê (muşawir) Encumena Ewlehiya Kurdistanê, Mesrûr Berzanî, ji ajansa Reuterê re daxuyand ku leşkerê iraqî karî bû ku Dewleta Islamî li Rojhilata Mûsilê bişkîne. Lê wî got jî ku şerrê li dijî vê Dewletê dirêj e, ku ew şerrekî aborî û îdêolojîk e jî û ku DAIŞ encama pergala (système) xerab a siyasî li Iraqê ye.

Berzanî got jî ku di destpêka şerrê Mûsilê de, Dewleta Islamî gazên klor û xerdel avêtin ser Pêşmerge û ku gelek ji şervanên wê xwe di nav penaberan de veşarti bû ji bo ku bigihîjin Kurdistanê, lê ku ew hatin ragirtin.
*(Rudaw.net, 07.11.2016)*

***DAIŞê çekkên kîmyayî li Geyarê bi kar anîn***
Rêxistina navneteweyî Human Rights Watch daxuyand ku Dewleta Islamî çekkên kîmyayî li Geyare, 60 km li Başûrê Mûsilê, bi kar anîn. Ev bajarok ji aliyê leşkerê iraqî di Tebax 2016 de hat rizgar kirin.
*(Rudaw.net, 11.11.2016)*

***73.000 penaber***

Rêxistina Navneteweyî ya Koçberiyê (IOM) daxuyand ku ji 17 Çirî de, jimara penaberan gihajt 73.000 û ku 7.000'ên din vegeriyane malên xwe. Û wê got jî ku ew, ji bo vekirina kampên nuh, bi hukûmeta iraqî re kar dike.

Berdevkê vê rêxistinê, Joel Millman, di konfêranseke çapemeniyê de got ku pêwîstiya 40.000 sîvîlan bi lênêrîna derûnî (psîkolojîk) heye.
*(rudaw.net, 27.11.2016)*

***Mîlîseke şîî firokexaneya leşkerî ya Til Eferê rizgar dike***
Mîlîsa şîî ya Heşdî Şe'bî daxuyand ku wê çavdêriya (kontrol) firokexaneya leşkerî ya Til Eferê kir. Ev yek, piştî şerrekî giran li dijî Dewleta Islamî.
*(rudaw.net, 16.11.2016)*

***Başûrê Mûsilê bicarek rizgar bû***
Fermandarê polîsê fêdêral ê iraqî, Raid Şakir Cewdet, di daxuyaniyeke nivîskî de got ku eniya Başûrê Mûsilê, ku aqara (mesahe) wê 850 m2 ye, bicarek hat rizgar kirin.

Û wî got jî ku ji destpêka tevgerê de, 10.815 malbat ji Dewleta Islamî hatin rizgar kirin, ku 951 şervanên vê Dewletê hatin kuştin, ku 269 ji erebeyên wan ên bombekirî hatin pûç kirin û ku jimareke mezzin ji çekkên wan, ku ji wan 36 mûşekên çekkên kîmyayî, hatin stendin.
*(rudaw.net, 19.11.2016)*

***52.000 penbarên Mûsilê li Kurdistanê***

Hukûmeta Kurdistana Iraqê daxuyand ku ji destpêka tevgera Mûsilê de, 52.000 penaber gihajtin Herêma Kurdistanê û li 5 kampan hatin bi cî kirin : Xazir, Hesen Şam û Dibege, li nêzîkî Hewlêrê, û Zêlkan û Nêrgizlî, li nêzîkî Duhokê. Navenda Hevbeş a Hemahengiya Boranan (krîz) bi birêvebirina wan xerîk (mijûl) e.

Hukûmeta Kurdistanê got ku rewşa wan penaberan gelek xerab e, ji sedema nebûna, av, xwarin, derman, sûtemenî … û bangî sazendeyên navneteweyî kir ku alîkariya wê bikin.
*(rudaw.net, 26.11.2016)*

**PARÊZGEHA SELAHEDDÎNÊ**

***3 DAIŞ tên kuştin***
***Di 06 Teşrîn de***, 3 şervanên Dewleta Islamî xwest ku li bajarokê Şergatê, 120 km li Başûrê parêzgeha Sehaheddînê, xwe biteqînin. Lê ew ji aliyê mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî hatin kuştin. Şergat ji aliyê leşkerê iraqî di 22.09.2016 de hati bû rizgar kirin.
*(rudaw.net, 06.11.2016)*

**PARÊZGEHA KERKÛKÊ**

***2 DAIŞ xwe diteqînin***
***Di 06 Teşrîn de***, di demjimêr 3 ya serê sibê de, 2 DAIŞ xwest ku li benzînxaneya bajarokê Yayçi, yê girêdayî Kerkûkê, xwe biteqînin. Lê bombe di rê de teqiya û ew hatin kuştin.
*(rudaw.net, 06.11.2016)*

*Xurmatû bûye 2 beş*
Nuha, bajarokê Xurmatû bûye du beş : Yek tê de Kurd dijîn û yek jî Tirkmen. Ji berê, ev her du êtnî tev li hev bûn û bi aşîtiyane bi hev re dijiyan.
*(rudaw.net, 25.11.2016)*

**PARÊZGEHA BEXDADÊ**

*Heciyên şîî : 70 kuştî û 20 birîndar*
***Di 24 Teşrîn de***, barhilgireke (kamyon) bombekirî li Hillê, li Başûrê Bexdadê, li nav heciyên şîî teqiya. 70 kes hatin kuştin û 20 jî birîndar bûn. Piraniya wan Îranî bûn. Dewleta Islamî xwedî li vê êrîşê derket û serokatiya Kurdistana Iraqê ew şermezar kir.

Her sal bi deh hezaran Îranî diçin seredana vî ciyî, ji bo bibîranîna Imam Huseyn li bajarê iraqî yê Kerbelayê.
*(rudaw.net, 24.11.2016)*

*Mîlîseke şîî ji aliyê parlementê tê nas kirin*
***Di 20 Teşrîn de***, parlementa iraqî deng da biryareke ku statuya (nasname) mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî, ku li dijî Dewleta Islamî şerr dikin, fermî (resmî) kir. Bi vî awayî, ewê ev mîlîs girêdayî wezareta iraqî ya parastinê bibin û ewê jê pere bistînin. Du hêzên sunnî daxuyand ku ew li dijî vê biryarê ne.
*(rudaw.net, 26.11.2016)*

*Karsazekî yezîdî tê revandin*
***Di 25 Teşrîn de***, êvarê, Dawûd Şemo, karsazek û kesahiyeke naskirî di nav Kurdên yezîdî de, li navenda Bexdadê hat revandin.

Berpirsiyarekî Partî Dêmokratî Kurdistan (PDK), Elî Ewnî, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku Şemo ji aliyê çend kesên çekdar, ku di nav erebeyên fermî (resmî) de bûn, hat revandin û ku çarenivîsa wî ne diyar e. Û wî got jî ku dibe ku sedema revandina wî pere yan alkol (vexwarinên alkolî) be, ji bo ku Şemo ew difirotin.

Şemo ji bajarokê Wankê, yê parêzgeha Duhokê, ye û di nav Kurdên yezîdî de bazarganekî naskirî ye.
*(rudaw.net, 26.11.2016)*

**KURDISTAN**
***2 zarok tên kuştin û 1 birîndar kirin***

***Di 25 Teşrîn de***, bombeyek di nav zarokên ku li bajarokê Gulale, li Başûrê Kurdistanê, dilîzt teqiya. 2 zarok hatin kuştin û 1 birîndar bû. Yek ji zarokên kuştî Ereb û yek jî Tirkmen bû.

Gulale di 2014 de ji aliyê Dewleta Islamî hati bû vegirtin. Piştre, Pêşmerge, bi alîkariya hêzên şîî yên Heşdî Şe'bî, ew rizgar kiri bû. Di vî şerrî de, 144 Pêşmerge hati bûn kuştin û 30 birîndar kirin.
*(rudaw.net, 25.11.2016)*

*Rojnamevanekî şîî tê ragirtin*
Rojnamevanekî japonî, Kosuke Tsuneoka, ku bi navê Şamil tê nas kirin, li Kurdistana Iraqê, bi tawana pêwendiyên bi Dewleta Islamî re, hat ragirtin. Piştre, ew ji hukûmeta japonî re hat radest kirin. Wî itiraf kir ku ji bo Dewleta Islamî kar kiriye û ku ew çû bû Reqqa, paytexta DAIŞê li Sûriyê.

Li gora çavkaniyên ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê, ew bû bû misilman û bi Çeçenên vê Dewleta Islamî re şerr kiri bû. Ji berê jî, ew demek li Reqqa ma bû.
*(rudaw.net, 01.03.2016)*

**JINÊN KURD LI DIJÎ 10 MELLEYAN**
Encumena Jinan li Parlementa Kurdistanê giliyê 10 melleyên hin mizgeftan li bal wezareta ewfaqên olî kir. Wan ew bi axaftina li dijî jinan, li minberên mizgeftan û li kanalên têlêvîzyonan, tawanbar kirin.
*(rudaw.net, 01.11.2016)*

**BERZANÎ : NABE KUR MIZGEFT BIBIN AMÛREKE SIYASÎ**
Konfêransek bi navê « Ber bi axaftineke olî ya hevseng (modêrn), li ser bingeha humanîsm û aşîtiya civakî » li Hewlêrê bû.

Serokwezîrê kurd Nêçîrvan Berzanî tê de peyivî û got ku nabe ku minberên mizgeftan bibin amûreke (alet) siyasî û ku divê ku melle bîrê (fikr) bihevrejiyanê belav bikin. Û wî girîngiya rola Pêşmergeyên ku li dijî rêxistineke weka Dewleta Islamî şerr dikin anî bîran.
*(rudaw.net, 08.11.2016)*

**SEREDANÊN KURDISTANÊ**

*Patrîkê Asûriyan*
***Di 12 Teşrîn de***, serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, pêşwaziya Patrîkê dêrên rojhilatî yên Asûriyan li cihan û Iraqê, Goris Silêweyê 3mîn, û şanda wî, kir. Patrîk spasiya hukûmeta Kurdistanê, ji bo rizgarkirina navçeyên fille ji Dewleta Islamî û ji bo pêşwazîkirina penaberên fille, kir. Û wî Pêşmerge, ji bo biserketinên wan, pîroz kirin.
*(Rudaw.net, 12.11.2016)*

**SEREDANÊN DERVE**

**FRANSA**

*Kongreyeke navneteweyî*
***Di 31 Çirî 2016 de***, li Parîsê Kongreyeke Navneteweyî ya Têkoşîna li dijî Penceşêrê (nexweşiya kansêrê) bû. Navenda Rehetkirina ji Penceşêrê û Rêxistina Têkoşîna li dijî Penceşêrê, yên Kurdistana Iraqê, beşdarî wê bûn.
*(rudaw.net, 02.11.2016)*

## ÎTALYA

### *Mîrê Yezîdiyan li bal Papa*



Kurrê Mîrê Yezîdiyan Mîr Tehsîn, Birîn Tehsîn, rastî Papa François li Vatîkanê hat. Wan pêşeroja parêzgeha Nînewa, ya Mûsilê, piştî têkbirina Dewleta Islamî, û aşîtiya di navbera gelên cihê yên vê navçeyê giftûgo kirin.
Piştre, wan parastina Kurdên yezîdî û hindikayiyên din ku di nav destên Dewleta Islamî de ne giftûgo kir. Mîr Birîn ji Papa re 6 xal pêşniyar kirin :

1- Avakirina du hukûmetên cihî (mehellî) li Şingal û Nînewa û naskirina wan ji aliyê civata navneteweyî.

2- Rizgarkirina hemî girtiyên yezîdî, bi taybetî jin û zarokan, ku ji aliyê Dewleta Islamî hati bûn revandin.

3- Piştgiriya pêşniyara Brîtanya Mezzin li Encumena Ewlehiyê ya UNê, ku Dewleta Islamî were birin ber Dadgeha Navneteweyî ya Tawanan (cinayet) û ku nijadkuniya Kurdên yezîdî were nas kirin.

4- Alîkariyên mirovî ji hemî penaberên ku li Kurdistana Iraqê ne û piştgiriya 500 Kurdên yezîdî ku li giravên yûnanî ne, ji bo ku karibin bigihêjin Ewropa.

5- Ji hukûmetên cihî û navçeyî yên Rojhilata Navîn xwestina rûmetkirina (hurmet) hindikayiyan, ku ji wan Yezîdî û Fille.

6- Piştî azadkirina navçeyê ji destê Dewleta Islamî, amadekirina nexşeyeke (plan) ji nuh de avakirin û nuhkirina Şingal û Nînewa.
*(rudaw.net, 07.11.2016)*

## TIRKIYE

### *Serokwezîrê kurd*

***Di 23 Teşrîn de***, serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, li Ankara rastî serokwezîrê tirk Binali Yıldırım, û piştre serokê tirk ê karên derve Mevlut Çavuşoğlu, hat. Wan rewşa navçeyê, pêwendiyên di navbera Kurdistana Iraqê û Tirkiyê de û tevgera Mûsilê giftûgo kirin.

Piştre, Berzanî li Istanbulê rastî serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan hat.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 23.11.2016)*

## MÎRIYÊN EREBÎ

### *Seredana Berzanî*

***Di 25 Teşrîn de***, serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, çû Ebû Dabî, li Mîriyên Erebî yên Yekbûyî. Ev yek li ser vexwendina alîkarê mîrê wê û alîkarê serokê leşkerê van Mîriyan, Şêx Muhammed Bin Zayid El-Nehyan. Tu daxuyanî li ser naveroka van rasthatinan ne hat kirin.
*(rudaw.net, 25.11.2016)*

## ÎRAN LI DIJÎ SERXWEBÛNA KURDISTANÊ

Rawêjkarê (şêwirmend) Bilind ê serokê Îranê, gênêral Rahîm Yahya Safawî, li Tehranê daxuyand ku hukûmeta wî dilgiran (xemgîn) e, ji sedema dûrketina hukûmeta Herêma Kurdistana Iraqê ji ya Bexdadê, ji bo ku hukûmeta kurdî hin lihevkirinan bi siyonîstan (Israîl) re kirin ! Wî hişyarî da berpirsiyarên kurd û got ku eger ew serxwebûna xwe daxuyînin (îlan bikin), ewê hunda bikin.

Hukûmeta Kurdistanê bersîva wî da û got ku ew iddiayên wî napejirîne (qebûl nake).

*(rudaw.net, 07.08.2016)*

# KURDISTANA ÎRANÊ

### 3 GIRTÎ TÊN ÎDAM KIRIN
***Di 01 Teşrîn 2016 de***, bi şev, 3 girtiyên kurd ji aliyê rejîma îranî li girtîgeha Urmiyê, li Kurdistanê, hatin îdam kirin. Ew bi bazarganiya maddeyên hişbir (heşîş, êroîn …) hati bûn tawanbar kirin.
*(rudaw.net, 02.11.2016)*

### QAÇAXÇIYEK TÊ KUŞTIN
***Di 01 Teşrîn de***, qaçaxçiyekî kurd ji aliyê polîsê îranî (Pasdar), li sînorê bajarê Serdeştê, li Kurdistana Îranê, hat kuştin.
*(rudaw.net, 02.11.2016)*

### BINGEHÊN SÎNORÎ TÊN GIRTIN
***Di 03 Teşrîn de***, ji bo sedemên ewlehiyê, hukûmeta îranî biryar stend ku beşek ji 12 xalên nîv-fermî yên li sînorê Kurdistana Îran û Iraqê bigire. *(rudaw.net, 06.11.2016)*

### ÇEMMEK TÊ BIRRÎN
Berê 20 rojan, hukûmeta îranî ava çemmê Sîrwanê, ku ji Kurdistana Îran û Iraqê derbas dibe, birrî. Ev çem 75% ji ava bendava Derbendîxanê dabîn (te'mîn) dike.
*(rudaw.net, 15.11.2016)*

### ASTA GELEK NIZM A XWENDINÊ LI URMIYÊ
Li gora berpirsiyarên perwerdiya parêzgeha Urmiyê, asta (sewiye) xwendinê tê de gelek nizm e û ji 31 parêzgehên Îranê, ew li rêza 27mîn e. Bi ser de jî, rewşa perwerdeyê li parêzgehên din ên Kurdistanê, weka Kirmanşah, Sine û Ilamê, jî ne baş e.
*(rudaw.net, 17.11.2016)*

# KURDISTANA SÛRIYÊ

### DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ

### PARÊZGEHA REQQA



### *Destpêka tevgera Reqqa*
Hêzên Sûriya Dêmokratîk, ku serkêşiya wê Yekîneyên Parastina Gel (YPG), ku girêdayî partiya kurdî PYD ne, ku ew jî girêdayî PKKê ye, dikin, daxuyand ku tevgera Reqqa, paytexta Dewleta Islamî li Sûriyê, ***di şeva 05.11.2016 de dest pê kir.*** Navê wê « Hêrsa Firatê » ye. Ev daxuyanî li bajarokê kurdî Eyn Îsa, ji aliyê berdevka vê komê, Cihan Ehmed, hat kirin.
*(rudaw.net, 06.11.2016)*

***2 gund tên rizgar kirin***

Gundê Til Ec, ku girêdayî Eyn Îsa ye, ji aliyê hêzên Hêrsa Firatê hat rizgar kirin. Piştre, gundê Til Seman, 25 km ji Reqqa, jî hat rizgar kirin.
*(rudaw.net, 07,20.11.2016)*

### *Rûniştevanên Reqqa direvin*
***Di 11 Teşrîn de***, rûniştevanên hin gundên Reqqa reviyan û xwe gihand hêzên YPG (Kurd) û HSD (Kurd, Ereb û yên din). Jinan « niqab »ên (cillên dirêj û reş) ku ji aliyê Dewleta Islamî li ser wan hati bûn ferz kirin avêtin.
*(rudaw.net, 11.11.2016)*

### *Amerîka : Planeke hevbeş bi Tirkiyê re*
Fermandarê leşkerê amerîkî, Joseph Dunford, daxuyand ku ew di ***06 Teşrîn*** de bi fermandarê leşkerê tirkî, Hulusi Akar, re 4.30 demjimêran civiya. Wî got ku di çarçeveya hevpeymaniya navneteweyî li dijî Dewleta Islamî de, her du welat planeke wan a hevbeş a rizgarkirina Reqqa heye.
*(rudaw.net, 07.11.2016)*

### *Fransa bangî hepeymaniya navneteweyî dike*
Berdevkê hukûmeta fransî, Stephane Le Foll, bangî hevpeymaniya navneteweyî kir ku dest bi tevgera xwe li Reqqa bike, ji bo ku Dewleta Islamî ji Mûsilê direve wê derê.
*(rudaw.net, 19.11.2016)*

### EFRÎN
***8 kuştî û 50 birîndar***

***Di 13 Teşrîn de***, teqînek li xala çavdêriya Asayişê (hêzên ewlehiyê yên kurdî), li nêzîkî gundê Xezewê, bû. 8 kes hatin kuştin û 50 birîndar bûn. Piraniya wan Ereb bûn.
*(rudaw.net, 13.11.2016)*

### *Ezaz : 58 kuştî*
***Di 13 Teşrîn de***, 2 erebe li bajarokê Ezazê, ku girêdayî Efrînê ye û ku li nêzîkî xala sînorî ya Baul Selam, ya bi

Tirkiyê re, ye, teqiyan. 58 kes, ku ji wan şervanên rêxistina dijberiya sûrî Ehrar El-Şam, hatin kuştin.
*(rudaw.net, 13.11.2016)*

***Ezaz : Tirkiye sînorê xwe digire***
Pevçûn di navbera hêzên dijberiyê yên Leşkerê Azad ê Sûrî de, ji bo çavdêrîkirina xala sînorî ya Babul Selam, a bi Tirkiyê re, bûn. Eva dawîn bi awakî demkî (muweqqet) xala xwe ya sînorî ya Öncüpınarê, li nêzîkî Kilisê, girt.
*(rudaw.net, 14.11.2016)*

**QAMIŞLÎ**

***Şerr di navbera Asayiş û leşkerê sûrî de***
***Di 23 Teşrîn de***, serbazên leşkerê hukûmî yê sûrî agir berda erebeyeke ewlehiya kurdî « Asayiş ». Eva dawîn bersîv da. Efserekî (zabit) sûrî hat kuştin. Asayişê hatûçûnê li hundir û li dora Qamişlî qedexe kir. Bi ser de jî, hemî hêzên leşkerî yên Birêvebiriya Xweser (a partiya PYD) li Kantona Cezîrê ketin amadebaşiyê.
*(rudaw.net, 23.11.2016)*

**PYD YASAYEK LI SER BACAN DERDIXÎNE**
Her du hev-serokên Kantona Cezîrê, Heyfa Erebo (jineke kurd) û Himêdî Deham El-Hacî (ereb) Yayasa (qanûn) N° 18, a sala 2016, ku tê de xalek li ser bacên (taxes) hatinan heye, pesend (tesdîq) kir.
*(rudaw.net, 10.11.2016)*

**GÊNÊRALÊN TIRK LI SER SÎNOR**
***Di 07 Teşrîn de***, fermandarê leşkerê tirkî, Hulusi Akar, tevî 5 gênêralan, çû seredana Rihayê (Urfa), li Kurdistana Tirkiyê, li sînorê Kurdistana Sûriyê. Amanca vê seredanê çavdêrîkirina (kontrol) yekîneyên leşkerî ku li sînorê sûrî ne (di navbera Kurdistana Tirkiye û Sûriyê de) bû.
*(rudaw.net, 07.11.2016)*

**TIRKIYE HIŞYARÎ DIDE PYDê**
***Di 15 Teşrîn de***, di axaftineke li Ankarê de, wezîrê tirk ê parastinê, Fikri Işık, PYD tehdîd kir û got ku eger ew « kantonên » li Sûriyê (navçeyên azadkirî) bigihîne hevdu, ewê baceke giran a vê yekê bide.
*(rudaw.net, 15.11.2016)*

**TIRKIYE 2 YPG'ên ÇÊKÎ RADIGIRE**
Di tevgerekê de, hêzên ewlehiyê yên tirkî li Şirnexê, li Kurdistana Tirkiyê, 2 şervanên YPGê yên çêkî (ji welatê Çêkya) ragirtin : Zilamek, Miroslav Farkas, ku YPG navê wî kiriye « Serxwebûn Botan », û jinek, Maketa Vîsêlîçova, ku YPJ (jinên YPG) navê wê kiriye Zîlan Botan, ragirtin. Wan di 2015 de xwe gihandi bû YPG û li Ewropa û Sûriyê bi dermankirina birîndarên YPG û bi berhevkirina alîkariya lojîstîk xerîk (mijûl) bûn.
*(rudaw.net, 17.11.2016)*

**3 SERBAZÊN TIRK LI NÊZÎKÎ HELEBÊ TÊN KUŞTIN**
***Di 24 Teşrîn de***, nêzîkî demjimêr 3.30 a serê sibê, firokeyên hukûmeta sûrî leşkerê tirkî li El-Babê, li Bakurê Helebê, bombe kir. 3 serbaz hatin kuştin û 10 birîndar bûn. Bi alîkariya dijberiya sûrî, ya bi navê Leşkerê Azad ê Sûrî, ev leşkerê tirkî keti bû nav Sûriyê, di çarçeveya tevgera bi navê « Mertala Firatê » (li bultena me ya buhurî binêre).
*(rudaw.net, 24.11.2016)*

**PYD LI DIJÎ KURDÊN DIN**

**DÊRIK**

***Endamekî PDK-Sê tê revandin***
***Di 06 Teşrîn 2016 de***, servîsên ewlehiyê yên partiya PYD, Asayiş, êvarê Mesûd Hemdo, endamê Partî Dêmokratî Kurdistana Sûriyê (PDK-S) revand. Tu nûçe jê nîn in. Ew bavê 3 zarokan e.
*(avestakurd.net, 06.11.2016)*

***2 şîn tên qedexe kirin***

Tabûtên her du Pêşmergeyên Kurdistana Sûriyê (ku li Kurdistana Iraqê şerr dikin) hatin anîn her du gundên Toremîşa û Zehêriyê, yên girêdayî Dêrikê. Rûniştevanan xwest ku pêşwaziya wan bikin, lê servîsên ewlehiyê yên PYD, Asayiş, ji wan re pirs (problêm) derxistin. Ev yek berê jî bû bû (li bultenên me yên buhurî binêre).
*(rudaw.net, 13.11.2016)*

**QAMIŞLÎ**

***3 endamên ENK-Sê û rojnamevanek tên azad kirin***
***Di 06 Teşrîn de***, Asayişê Mizgîn Ramadan, endamê sekretarya giştî ya Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê (ENK-S) azad kir. Berê du mehan, ew, tevî birêvebirên din ê vê encumenê, hati bû zîndan kirin.
*(avestakurd.net, 06.11.2016)*

***Di 23 Teşrîn de***, bi şev, Asayişê 2 berpirsiyarên ENK-Sê, Neş'et Zaza û Nafih Abdullah, û rojnamevanek, Berzan Şêxmûs, azad kirin.

Ev azadkirin piştî seredana şandeke amerîkî-fransî Kurdistana Sûriyê bû.
*(rudaw.net, 23.11.2016)*

AMÛDÊ

***Endamên partiya Yekîtî tên ragirtin***
***Di 15 Teşrîn de***, Asayiş ket nav buroya Partiya Yekîtî ya Kurdî (Yekîtî) û alîkarê sekreterê wê, Hesen Salih, û 4 endamên polîtburoya vê partiyê ragirtin. Bi ser de jî, nêzîkî 20 berpirsiyar hatin birin navenda Asayişê, ji bo jêpirsînê.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 17.11.2016)*

**HESÎÇÊ**

### *Rojnamevanek tê êşkence kirin*

***Di 22 Teşrîn de***, êvarê, rojnamevanekî kurd, Serdar Darî, ji aliyê Asayişê hat ragirtin. Wê çavên wî girtin û ew bir ciyekî nenas. Piştre, wê ew gelek êşkence kir û avêt nêzîkî gundekî Başûrê Hesîçê. Roja din, serê sibê, ew hat birin nexweşxaneya vî bajarî. Birêvebiriya Xweser (a partiya PYD) li ser vê yekê tutişt ne got.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 23.11.2016)*

**YEZÎDÎ JI PYD DIXWAZIN KU XWE NEXE NAV KARÊN WAN**

Encumena Kurdên Yezîdî li Sûriyê daxuyaniyek kir û tê de ji PYD xwest ku xwe nexe nav karên Yezîdiyan.

Di daxuyaniyê de tê gotin ku li bajarên Serê Kaniyê û Efrînê şervanên islamî êrîşî Yezîdiyan kir û evên dawîn neçar bûn ku ji malên xwe birevin. Û tê de tê gotin jî ku PYD jî dest pê kiriye ku bixwaze ku ev Yezîdî bixe bin çavdêriya xwe û dest danî ser rêxistina "Mala Yezîdiyan".
*(rudaw.net, avestakurd.net, 20.11.2016)*

**DAXUYANIYA PDK-Sê**

Sekreterê Partî Dêmokratî Kurdistana Sûriyê (PDK-S), Siûd Melle, daxuyaniyek kir û tê de ragirtina parlementerê kurd ê Tirkiyê, yê partiya HDP, Selahettin Demirtaş, ji aliyê servîsên ewlehiyê yên tirkî şermezar kir. Û wî ji PYD jî xwest ku girtiyên siyasî yên partiya wî azad bike.
*(rudaw.net, 05.11.2016)*

**ŞANDEKE AMERÎKÎ-FRANSÎ LI KURDISTANÊ**

***Di 20 Teşrîn 2016 de***, şandeke amerîkî-fransî ji riya Kurdistana Iraqê çû Kurdistana Sûriyê. Ew ji wezîrê berê yê fransî yê karên derve, Bernard Kouchner, û balyozê (sefîr) berê yê Amerîka li Kroasya, Peter Galbraith, pêk hati bû.

Serokê Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê (ENK-S), Ibrahîm Biro, li ser vê yekê ji kanala têlêvîzyona kurdî Rûdawê re daxuyand ku amanca vê seredanê nêzîkkirina aliyên kurdî bû û ku  ne cara yekemîn ku ev yek dibe.
*(rudaw.net, 20.11.2016)*

# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ

**KURDISTANA TIRKIYÊ**

### *Konfêranseke navneteweyî li ser penaberan*

Şaredariya Rihayê (Urfa) konfêranseke taybetî li ser pirsên penaberan, bi amadebûna nimînendeyên (temsîlcî) 22 welatan, pêk anî.

600.000 penaber, ku piraniya wan ji Sûriyê ne, li Rihayê bi cî bûne. Parêzgarê Riha, Güngör Azim Tuna, got ku welatên biyanî soz da bû ku alîkariya wan bike, lê ku wan bitenê 10% ji sozên xwe bi cî anî.
*(rudaw.net, 10.11.2016)*

**BELJÎKA**

### *Dadgeh : PKK ne têrrorîst e*

Dadgeha Cinaî ya Bruksêlê biryara xwe li ser bisûckirina Tirkiyê 36 kesan, weka "têrrorîst", stend. Wê sifeta "têrrorîsmê" red kir û gotinên "kampanya çekdar" tercîh kir.

Ji tawanbaran, Remzi Kartal û Zubeyir Aydar, ku di 2010 de serok û cîgirê serokê "KNK"ê (Kongreya Neteweyî ya Kurdî", ya li Bruksêlê, bûn.
*(rudaw.net, 03.11.2016)*

**ÎTALYA**

### *Pêşmergeyê Îtalya*

***Di 16 Teşrîn de***, li bajarê Lecee, Pakistaniyekî ku alîgirê Dewleta Islamî ye bi kêrekê êrîşî Erebekî kir û xwest ku serê wî jê bike. Kurdek, Ferman Xazî Abdullah, ket navberê û qurban kutah (xelas) kir. Ev yek dengekî mezzin di mêdyayên îtalî de da û navê Ferman "Pêşmergeyê Îtalya" hat kirin.

Ferman 36 salî ye û ji Kerkûkê, Kurdistana Iraqê, ye. Ew Pêşmerge bû û ji 2014 de li Îtalya dijî.
*(rudaw.net, 22.11.2016)*

**RÛSYA**

### *Navendeke bazarganiyî bi navê « Şingal »*

Li Mosko Kurdekî Yezîdî navendeke bazarganiyî bi navê « Şingal »ê vekir. Ji derveyî firoşgehan (dikkan), tê de kanaleke têlêvîzyonî, « Laliş », û buroyên çend rêxistinan, ku ji wan Rêxistina Kongreya Yezîdiyan, ku bi awakî fermî ji aliyê hukûmeta rûsî hatiye nas kirin, hene. Serokê wê, Samyol Koçoyî, got ku ew bi pirsên

Yezîdiyan xerîk (mijûl) dibe û ku amanca wê ya yekemîn nasandina qirkirina Şingalê qeka nijadkujî ye.

Beşek ji Kurdên yezîdî ku li Rûsya dijîn dewlemend e û kargeh û navêndên wê yên bazarganiyî hene. Navenda Şingalê li Rûsya û welatên din ên Yekîtiya Sovyêtî ya Berê gelek naskirî ye.
*(rudaw.net, 22.11.2016)*

**YÛNANISTAN**

***Malbateke kurd dişewite***
***Di 24 Teşrîn de***, bi şev, şewatek li kampeke penaberan, li girava Mîtîlînî, bû. Malbatek ji Suleymaniyê, Kurdistana Iraqê, ji 4 mehan de tê de bû. Yek ji zarokan mir. Dê û zarokeke din birîndar bûn û hatin birin nexweşxanê. Bav, Nebez, 27 salî, tutişt pê ne hat. Ew Pêşmerge bû.
*(rudaw.net, 25.11.2016)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

**KURDISTANA IRAQÊ**
***5.000 perçeyên hunderî li malekê***

Muhammed Emîn Mewlûd rûniştevanekî gundê Pîkê, li navçeya Xaneqînê, ye. Ji zarokatiya xwe de, ew ji perçeyên kevnar hez dike. Wî 5.000 perçe li mala xwe berhev kirine. Hin ji wan ji 300 salan in.
*(rudaw.net, 02.11.2016)*

***Peykerê kemana Dilşad Seîd li parkekê***
Bi merasîmeke mezzin, perde ji ser peykerê (heykel) kemana muzîkvanê kurd ê navdar Dilaşad Seîd li parka Kevokê, li bajarê Duhokê, hat rakirin. Ev yek bi amadebûna parêzgarê Duhokê, Ferhad Etroşî, û jimareke mezzin ji hunermed û hevalên Dilşad.

Ev peyker ji aliyê 3 hunermendan hatiye çêkirin. Bilindbûna wî 11 m. û nîv e û firehbûna wî 2 m. e. Li tenişta peyker, 4 notên senfoniya Dilşad, ku ji wan "Pêşmerge" û "Şingal", hene.

Parêzgar Etroşî daxuyand ku navê vê parkê, Kevok, ewê were guherandin û bibe "Parka Dilşad Seîd".
*(rudaw.net, avestakurd.net, 05.11.2016)*

***Zanîngeheke lubnanî rûmeta Pêşmergeyekî kuştî dike***
Zanîngeha Fransî ya Lubnanê, ku li Hewlêrê ye, merasîmeke dayîna bawernameyan (dîplom), ji bo sala akadêmîk 2015-2016, pêk anî.

Yek ji xwenekaran Pêşmerge bû jî û dema ku wî şerrê Dewleta Islamî dikir hat kuştin. Kurrê wî derket ser sahnê û dîploma bavê xwe stend. Du xwendekarên din ên vê zanîngehê jî hatin kuştin.
*(rudaw.net, 14.11.2016)*

***Fêstivala Gelawêj***
***Di 20 Teşrîn de***, 20mîn Fêstivala Gelawêj a Suleymaniyê dest pê kir û ewê 4 rojan bajo (dewam bike). Ev fêstivaleke wêjeyî (edebî) û hunerî ye û bi sponsoriya tora mêdyayî ya Rûdawê tê pêk anîn.

Serokê Navenda Wêjeyî û Ronakbîrî ya Gelawêj, Dr. Newzad Ehemd, ji Rûdawê re daxuyand ku ji derveyî nivîskarên Kurdistana Iraq û Îranê, nivîskar, helbestvan û rexnegirên (krîtîk) wêjeyî yên Iraq, Lubnan, Ermenistan û Îranê jî hatin vexwendin (dawet kirin). Û wî got jî ku ewê tê de li ser nijadkujiyên kurdî û ermenî were peyivîn. Bi ser de jî, ewê rojek ji bo çandên erebî û farisî were terxan kirin (veqetandin). Li dawiyê, ewê Xelata Huseyn Arif ji romannivîsekî kurd re were dayîn.
*(rudaw.net, 20.11.2016)*

**NEMRÛD Û NÎNEWA (IRAQ)**

***Daiş şûnwaran dişikîne***
Di 2015 de, Dewleta Islamî jimareke mezzin ji şûnwar û peykerên bajarê kevnar ê Nemrûdê, bajarekî kevn ê Asûrî, 30 km li Başûrê Mûsilê, têk birin (xerab kirin). Û wî li Nînewa, li nêzîkî Mûsilê, jî perestgehên (ciyên ibadetê) Yezîdiyan û dêrên Fillehan têk birin.
*(rudaw.net, 17.11.2016)*

**HOLLYWOOD**



***Xelata Baştirîn Filma Biyanî***

Di merasîmeke dayîna xelatan ji fîlmên asyayî re li Hollywoodê, li Los Angelesê, fîlmçêkerê ji Kurdistana Iraqê, Helkeft Mustafa, Xelata Baştirîn Fîlma Biyanî, ji bo fîlma xwe "Classico", stend. Ew tê de çîroka du bejnkurtên ku gerreke bi tehlike dikin, ji bo rasthatina Ronaldo, stêrka yaneya futbola Real Madrid.
*(rudaw.net, 02.11.2016)*

**PORTUGAL**

***Stranbêjeke mezzin tê vexwendin konfêranseké***

Serokwezîrê Portugalê, Antonio Costa, stanbêja kurd a navdar **Helly Luv** vexwend konfêranseké, di çarçeveya Lutkeya (civîna bilind) Entêrnêtê li Lisbonê. Ew tê de rastî lîzvanê fûtbolê yê brazîlî yê navdar, Ronaldinho, hat û wan bi hev re "selfy"ek stend.
*(rudaw.net, 10.11.2016)*

**ALMANYA**

***Yaneyên ewropî yên fûtbolê Kurdekî dixwazin***

**Mehmûd Dawûd** ji Kurdistana Sûriyê ye û 20 salî ye. Ew di yaneya (équipe) fûtbolê ya almanî Borussia Monchengladbach de dilîze. Ji sedema biserketina wî ya mezzin, yaneyên ewropî, weka Liverpool, Juventus û Borussia Dortmundê, wî dixwazin. Ev yaneya dawîn 15 milyon € pêşniyara wî dike. Bi ser de jî, UEFA navê wî danî nav lîsteya 40 baştirîn lîzvanên ku temenê (umr) wan ji 21 salî kêmtir e û ku ewê bibin namzedên Xelata Lawê Zêrîn.
*(rudaw.net, 14.11.2016)*







*Ev bulten bi 4 zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî tê weşandin û bi e.mail ji nêzîkî 1.000 navnîşanan re tê şandin. Ew bi kurdî û fransî ji aliyê Pervîn Cemîl hatiye nivîsîn, ji aliyê Jona Mustafa hatiye wergerandin hollandî û ji aliyê Benedicte Von Achen hatiye wergerandin ingilîzî. Montaja wê ji aliyê Pieter Gerits hatiye kirin. Rênas Newrozî wê li ser CD'yan tomar (qeyd) dike û datîne ser facebook û malpera entêrnêtê, yên Buroya Kurdî, û* http://en.calameo.com/accounts/3601834. *Ew li ser kaxiz jî tê çap kirin û danîn nav pirtûkxaneya Buroyê, ku tê de berhemên bi nêzîkî 10 zimanan hene.*



**Vlaamse Gemeenschapscommisie Brussel**

